Bidestveanîna Mafên Netewî
Yên Gelê Kurd Di Çarçoveya Îranek Demokratîk û Federal De

Hejmar: 173
21'ê Çileya Pêşîn 2011
Buha: 150 Tûmen

# Agirî

## Roja Pêşmerge pîroz be

26'ê Sermawez, roja Pêşmergên Kurdistanê, roja wan şoreşvanên fîdakar e ku ber bi kopka xebat di pêxema pêkanîna rewşek baş pêngavan hildigrin. Pêşmerge bi hişyariyek zaf û bi hilgirtina çeka bergirî ji maf û hebûna netewa xwe li pey afirandina cîhaneke dadperwer û mirovî ye, û cihê şanaziya gel û welatê xwe ye. Seba vê rojê em pîrozbahiyê ji tev pêşmergên Kurdistanê dikin û yad û bîranîna şehîdên rêbaza Pêşmergatiyê bilind radigrin.

**Komîsyona Çapemenî a PDK Îranê**

Duheftînameyek siyasî, civakî, çandî û hunerî ye ku Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê diweşîne www.kurdistanmedia.com/kurdî

**Peyama Deftera Siyasî ya PDK Îranê, bi hinceta** 26'ê sermawez, roja Pêşmergên Kurdistanê

R: 3

**Pîşesaziya nefta Îranê,** armanca dorpêçên nû ye

R: 8

**Pêşeroja deverê li bin** ronahiya dawîn pêşhatan de

R: 10

# Pêşmerge bi moralek bihêz her niha jî di çepera berxwedaniyê de ye



Rê û rema 26'ê Sermawezê roja pêşmergeyên Kurdistanê li binkeya Deftera Siyasî a PDK Îranê bi beşdariay birêz Mistefa Hicrî Sekreterê Giştî, endamên rêberî, kadro, pêşmerge û malbatên wan, roja Şemiyê 26'ê Sermaweza sala 1390'an a Rojî birêve çû. Rê û resma han bi sirûda netewî a "Ey Reqîb" û ragirtina xulekê bêdengî bo rêzgirtina ji canê paqij yê şehîdan dest pêkir.

Piştre peyama Deftera Siyasî a PDK Îranê ji aliyê birêz Kawe Beharmî Endamê Deftera Siyasî yê PDK Îranê ve hat xwendin.
Di beşek ji peyama han de hatibû:
Pêşmerge berhema hizr û ramana PDK Îranê ye û di nava qatên civaka ...

R: 2

## Biryarnameyek nû bi dijî Îranê hate pesendkirin

**Civata giştî a NY di 17 'ê Çiriya Pêşîn de biryarnameyek pejirand ku heyamekê berî niha di komîteya mafê mirovan ya NY de, bi dengê erênî yê 86 welatan hatibû pejirandin, ew biryarnameya han bi bi 89 dengên erênî û 64 dengên bê alî û 39 dengên nerênî ve hat pejirandin.**

Biryarnameya NY seba serkuta dijberên siyasî, qamçîlêdan, birrîna endamên leş û zêdebûna berçav a birêvebirina hikmên daliqandinan ji aliyê rejîma Îranê ve, û zexta li ser kêmaniyên mesebî hat pesend kirin.

Di rapora herî nû ya rexistina lêburîna navnetewî de jî hatiye ku di sala derbasbûyî de pitir ji 600 kes di Îranê de hatine daliqandin ku beşek ji wan daliqandinan bi şêweyên veşartî birêve çûne.



## Sipaha pasdaran: Me mahwareyeke sîxuriyê a DYA'ê jinav bir

**Li gorî zanyariyan, Îranê bi şandina lîzereke bihêz karî mahwareyeke sîxuriyê a Amerîkayê kore bike.**

Berpirseke Amerîkayî eşkere kir ku hekî Îran dezgehên wusa bidestve anîbin, dikare bibe gefeke micid li ser mahwrên din ên cihanê jî.

Rêjîma Îrenê korkirina mahwareya han û girtina firokeya casûsîya Amerîkayê weke bersivek bi goşarên Amerîkayê bo ser Îranênê dide zanîn.






**Pêşmerge şoreşvanek** rizgarîxwaz û fîdakar

Di nav her netewe û civakek jêrdest de komek mirovên azadîxwaz û ...

R: 6

Dara Natiq



**Bazerganî** li ser xwînê

Selah Muradî

Dewleta Rûsiyê li helwestek çavnihêrnekirî de reşnivîsa biryarnameyekê xiste...

R: 8



**Cazê xanima** Şikak kê bû?

Bêhzad Simko

Di sala 1799'an da Simayîl axayê mezin (babê bapîrê Simko yê Şikak) bi ...

R: 9



**Rojnamevanî; hişyarkirina ifrît** di xewa giran de!

Ceifer Mubeşirniya

Salek din jî hat û bihorî, Komara Îslamî a Îranê li ser ...

R: 10

# Peyama Yekîtiya Zanayên Ayînî ên Kurdistanê bi boneya 26'ê Sermawez, roja pêşmergê Kurdistanê

Dagîrkerên weka Komara Îslamiya Îranê ku binpêkarên mafê mirovan û tevaya tex û qatê Îranê ne, heya rêz û hurmetê ji Qurana pîroz re jî dananên, û Xwedayê mezin li Qurana pîroz de emir dike ku: "min hûn afirandin ji çend nêr û mêyan û min hûn parve kirin, bi ser çend tîre, êl û eşîr û neteweyan bi taybetmendiyên cuda û bi şêwazên




cuda ku heta bo nasandin û têgihîştina ji yektir û ne tiştek din. Hekî ne pêwer ji bo meznahiya we parêzgariya ji dîn e û zorî û zordarî.

Gellek asayî ye ku cudahiya neteweyan bi hemû reng û pêstên xwe û boçûnekê ji aliyê xwedayê mezin hatiye diyarî kirin. Lê komara Îslamiya Îranê li jêr navê pîroziya Îslamê tenê rê dide wan kesan ku li welatê bela lêdayî ê Îranê de bijîn, ku lio çarçoveya bîr û îdeolojiya çeqbestî a xwe de hatibin girêdan û peyrewê kevneperestaneye xwe bin. Gelên din ên Îranê li jêr şêmşêra bê emaniya vê zordarê de hatine çewsandin, lewra riya pêşmerge riya edalet û yekîtî û bihevre jiyanê ye. Pêşmergê xortê wî xelkê ye ku dijî newekhevî û çewsandinê ji aliyê rejîmaÎranê ve serî hilda ye.

Em wek yekîtiya Zanayên Ayînî ên Kurdistanê pîrozbahiyê ji tev pêşmergeyan û xelkê Kurdistanê dikin, û piştgiriya xwe ji pêşmergeyên qehreman û cesûr ên Kurdistanê ducarî dikin, û ji xwedayê mezin dixwazin ku me ew bigîjin hêvî û armancên xwe.

السلام و علیکم و رحمه الله و برکاته

**Yekîtiya Zanayên Ayînî ên Kurdistana Îranê**

## Sergotar

### Xortê rojê

**Keyhan Yûsifî**

Roj, ronahî, tîrojk, stêrk, ji wan sembolan in ku li dîroka pirr ji şanaziya mirovatiyê de hewtayê maf xwazî, û dadperweriyê ne, û azadîxwaz û xebatkar berdewam mifah jê wergirtine û xebat û tekoşîna û asoya serîhildana xwe bi wan wateyan ve girê dane.

Stêrkên pir tîrojk, rê nîşanderên şewên reş in û şefeqa tarîtî û bê hêvîtiyê de riya gihîştina bi gopka serbestiyê ji rêvîngên aştî û ronahiyê re destnîşan dikin.

Şerê ronahî û tarîtiyê baş û xirap, heq û ne heq, çawaniya dîroka mirovahiyê, pêk tînin û şerê di navbera du bereyên xêr û şer yan jî ronahî û tarîtî, çîroka ji mêjîn ya rûpelên dîrokê bûn. Her demekê reşî û tarîtî û deshilata biyom ya zordaran û dîktatoran per û baskê xwe bi ser gund û bajarên her welatekê de kêşaye û ronahî û azadî êxsîr kiriye, li her ciheke vê cîhanê de û li nav her girûp û qewm û neteweyekê de bibe, mirovên cesûr û gernas û jêhatî hene ku serî hildane û naweroka rastîn ya dîroka mirovahiyê ya xwe nas kirine û xwe wek rêvîngê riya ronahî û azadiyê dane nasandin û alaya serhildan û xebat û tekoşîna xwe bi dijî rewşa dasepayî û deshilata reş û biyom bilind ragirtine, û naznavê xortên rojê û rêvîngên aştî û azadiyê li ser xwe danîne.

Li dîroka Îraniyan dû li ayîna Mîtrayî de şeva dawiyê a Payîzê wek şeva Yelda hatiye binav kirin. Yelda payvek Siryanî ye ku tê wateya ji dayîkbûna roj, yan jî şeva jidayîkbûna "Mêhr" e. Ew şev ji aliyê gelên herêmê bi hezaran salî ye ku tê pîrozkirin, û herweha li ayîna Mesîhiyan de wek şeva ji dayîkbûna Mesîh ji aliyê hinek ji peyrewên vê ayînê ve rêz jê tê girtin.

Şeva Yelda destpêka dirêjbûna rojê û kurtbûna tarîtiyê ye, û wateya serkevtina Ehuramezda bi ser ehrîmen yan ronahî bi ser tarîtiyê dide.

Di dîroka pirr ji şanaziya xebata mafxwaziya gelê kurd bi giştî û rojhelata Kurdistanê de bi taybetî ew xwediyê cudahiyekê ye. Li şevek weha de wate li şeva ji dayîkbûna rojê de û li esmanê reş ê Kurdistanê de stêrkek ji dayîk dibe û tîrojkên wê herderê ronahî dike. Belê şeva Yelda ji me Kurdan re cejna jidayîkbûna pêxemberê aştiyê û mamostayê demokrasiyê û alahilgirê xebat û payamînerê ronahiyê û mirovdostiyê û wateya şeva jidayîkbûna Qasimlo ye.

Li şeva herî dirêj a salê û li dawiya Xezanê de li şeva jidayîkbûna rojê de, li herêma Urmiyê Qasımlo ji dayîk dibe, da ku bibe Qasimloyê pêşmerge û rêber û birêveberê xebat û tevgera neteweyek zulimlêkirî û bîr û hizrên wî bibne çiraya riya rêvîngên rê û şopa azadî û ronahiyê.

# Beşdariya heyetek PDK Îranê di civîna

## parlemnetarên Kurdistanê de li welatê Swêdê

**Hejmarek ji perlementarên Kurdistanê li welatê Siwêdê civînek pêk anîn û li ser gaziya fermî a Fedrasyûna Komeleyên Kurd û Kurdistanî, heyetek PDK Îranê di vê civînê de beşdar bûn.**

Roja 15'ê Çileya Pêşîn a 2011'an, li ser gaziya fermî a Fedrasyûna Komeleyên Kurd û Kurdistanî li Swêdê, heyetek PDK Îranê bi serperestiya birêz "Hemîd Têmûrî" di civînekê de ku bo perlementarên Kurdistanê pêkhatibû de beşdar bû.

Perlementarên Kurdistanê pêkhatibûn ji: Kûstan Mihemed Ebdulla, Karwan Salih, Beyan Ehmed Berwartî, Dana Seîd Sofî, Celîl Usman, Îmad Mihemed, Salim Toma Kako û Ebdulla Hacî Mehmûd ku li ser daxwaza Fedrasyûna Komeleyên Kurd û Kurdistanî di vê civînê de beşdar bûn.



Civîna han ji aliyê Berpirsê Fedrasyûna Komeleyên Kurd û Kurdistanî, "Şermîn Bozerselan" destpê kir.

Her yek ji perlementaran piştî xwenasandinê, armanc ji sefera xwe bo dervey welat baskirin û piştre ji aliyê nûnerên partiyên Kurdî û berpirsên hêzên siyasî ên Kurd û Kurdistanî ve, raporek kurt li ser kar û çalakiyên partiyên Kurdî û hevkarî û piştevaniya partên Kurdî ji hev, pêşkêş bi beşdarbûyan kirin.

Doma manşêt R: 1

Kurdistanê de xwedî pêgehek cihgirtî ye. PDK Îranê roja 26'ê Sermawezê weke roja rêzgirtin ji pêgeha bilin û pîroz a Pişmerge diyarî kiriye û hemû salekê di vê rojê de ji aliyê endam û alîgirên PDK Îranê û xelkê Kurdistanê ve di quncik û aliyê cîhanê de bi rê û resmên cur bi cur ew roj tê rêzgirtin.

Piştî vê peyama hevpar a Yekîtiyên Jinan, Ciwanan û Xwendekarên Demokrat ên Kurdistana Îranê ji aliyê birêz Fuad Xakîbeygî ve hate xwendin.

Di beşek vê rê û resmê de, rêz ji du pêşmergeyên kevnar bi navên "Pervîz Meraxeyî" û "Zurar Xizrî" ku di vê 26'a Sermawezê de xizmeta pêşmergatiya wan gihîştibû 20 salan, ji aliyê birêz Mistefa Hicrî ve xelat ji wan re hat pêşkêşkirin.

Xwendina helbestan û sirûdên şoreşvanî ji aliyê korra huneriya PDKÎ ve û herweha govend û dîlana Kurdî ku ji aliyê pêşmergeyên kevnar ê PDKÎ ve hatibû amadekirin, naveroka vê reê û resmê bû.

Hêjayî basê ye ku ji bilî birêveçûna vê rêûresmê li navenda 1 û 3'ê a Kurdistanê de, bi awayên curbicur ew roja pîroz ji aliyê komîteyên PDKÎ li dervay welat de jî hate pîroz kirin.

Herweha endam û alîgirên PDKÎ li gund û bajarên Kurdistanê de serbarê rewşa pirr tund ya ewlehiyê karîn gellek cesûrane û bi awayekî berbiçav bi bilavkirina wêneyên rêberên şehîd ên PDKÎ û herweha tiraktan û bi nivîsandina diruşman rêz ji vê roja dîrokî girtin.

# Peyama Deftera Siyasî ya PDK Îranê, bi hinceta 26'ê sermawez, roja Pêşmergê Kurdistanê



**Xelkê xebatkar ên kurdistanê!**
**Malbatên rêzdar ên şehîdan û girtiyên siyasî!**
**Beşdarên rêûresma 26'ê sermawez roja pêşmergeyên kurdistanê!**
**Silav**

Roja 26'ê Sermawezê, roja pêşmergeyên kurdistanê li hemû xelkê kurdistanê bitaybetî li kadr û pêşmergeyên PDK Îranê pîroz be. Îro li vir em li devra hew kom bûne, da ku rêz ji van mirovan bigrin ku pêşengên netewa xwe ne, fîdakar û mandî nenas, pêşrew û pêşeng û nîşanderên rêka azadî û serbestî,û şoreşvanên dĵî çewsandin û goriyên armancên neteweya xwe, bi zanyarî û hest bi berpirsatî ev rêya han hilbiartine û bi mifah wergirtin ji hemû metoden serdemyane, bo gehiştin bi azadî û mafê netewî berdewam in li ser têkoşînê.

Her seba vê yekê dema ku di û kom û civînên taybet de navê pêşmerge tê ber bas, bejnek xebatkar û mandî nenas û têkşikênerê dujmin tê berçav, û bi hezkirin û kelecaneke zaf û bi hêviya rizgarî û azadî û pêşerojeke geş li armanc û rêbaza xwe dinêrin.

Pêşmerge weha di nav xelkê kurdistanê de cihê xwe girtiye û reh û rîşeyên xwe di erdê de qahîm kirine ku weke dareke xwedî reh û rîşe ye ku rojbi rojê ew rîşeyên wê xweîhêz û berfirehtir dibin. Ew dara wesha bi nirx ku ji aliyê neteweya xwe ve tê avdan, herdem di mezinbûn û geşekirinê daye û her çar perçên kurdistanê di bin siya vê dara mezin de diêvirin.
Ew berhema hizr û endîşeya avakerê hêza pêşmergê kuridstanê, wate PDK Îranê ya ku niha jî navê pir ji şanaziya hêza rizgarker ya gelê kurd, wate hêza pêşmergeyên kurdistanê sembola berxwedan û azadî di asta bîrûraya giştî ya cîhanê de ye. Pêşmerge bi tenê çekdarek asayî nine, belkî mamostayek zanîngehê, dîplomatek bihêz û rewşenbîrek serdemiyane yê/a netewa xwe ye ku kariye êş û elemên netewa xwe ya bindest bigehîne nav kom û civatên navnetewî û bibe tirîbonek ji bo gehandina dengê mafxwaziya netewa xwe bi bîrûraya giştî a cîhanî.

Heke dujminên gelê kurd bi çaveke dujminane û dûr ji rastiyan li taybetmendiyên pêşmerge dinêrin û bi şewazeke çewaşekarane di bîrûraya giştî de didin nasandin, niha xelkên azadîxwaz bi têgihîştin ji rastiyan, bi şêweyeke Piraktîk pêşmerge didin nasîn û pêşmerge bûye sembola azadî û serkevtinê.

**Rêzdarno!**

Baskirina li ser wan mirova ku hemû jiyana xwe ji destpêka gencitiyê ve ku xweştirîn dewrana jiyanê ye pêşkêşî gelê xwe kirine, di heyameke wiha kin de mirov nikare li gor giranî û meznahiya wê basê bike, hindî li ser bê nivîsandin û gotin, hêj nabe dilopek di hember behra bê sînor ya canê birîndar a mirovên bê nan û av ên çiyayên kurdistanê, ku bi fîdakariyek zaf berevaniyê ji keramet û şerefa kurd û kurdistanê dikin.

Di rastî de bi çi awayî em dikarin pesna mirovekî bikin ku di bin zinarên çiyayan û li jêr deng û agirê gulleyên dujmin de, bi îmaneke qahîm jiyan dike û êriş dibe ser dujmin û bîr ji wê nake ka gelo hekî birîndar bû, kîjan nexweşxane û kîjan doktor dê bibe loqman û hekîmê birînên wî û piştî bi davîhatina şer li ku wê bêhna xwe vede.

Gelo em çavan pesna van mirovan bikin ku di nava befra zivistanê de tiliyên destê xwe ji dest didin, lê di hember de qet amade nabin ku ji navê pir ji şanaziya pêşmerge poşman bibin. Kê dikare êrîş û berxwedan û qeremantiya pêşmerge binirxîne ku hêzeke pirr çeke dujmin têk bişkêne, û paşekişê pê bike, hindî li ser meznahî û qaremantiya pêşmerge bêjîn, hêj kêm e û nirxa wê pê nahêt dan, em di roja rêzgirtin li pêşmergeyên kurdistanê de cihê xwe ye ku bala we bikişînin ser çavaniya navdêr kirina vê roja pîroz.

PDK Îranê di pilînoma xwe de ku di roja 15 heya 24'ê Gelavêja sala 1363'an pêk hat, roja 26'ê Sermawezê weke roja pêşmergeyên kurdistanê navdêr kir.

Şanaziya raoja 26'ê Sermawezê vedigere ser êrîşa egîdên bajarê Mehabadê ku gellek bi dilsozane êriş birin ser şaredariya bajarê Mehabadê û bi dana şehîdekê, karîn dest bi ser şaredariyê de bigrin û binkeya herî dawî a rêjîma paşatî ji nav birin û bi vî awayî deshilata siyasî û îdariya beşek ji kurdistanê ket destê kurdan û her di vê rojê de, bi avayeke fermî Supaya Netewî bo parastina ewlehî û berewanî ji deskevtên şoreşa gelê kurd hat kirin.

PDK Îranê weke dahênerê navê pêşmerge û damezrênerê hêza pêşmerge û diyarîkerê roja pêşmerge, şanaziyê bi dîroka pir ji serweriya xwe dike ku kariye di heyamê 66 sal temenê ew hêza kurdistanî de, weke hêza berevanê kurd û kurdistanê berdewam di qada xebat û tekoşînê de bê mandî bûn di hember neyarên kurdistanê de, xebata azadîxwazaneya xwe bidomîne û bi yek hêvî û nêrîn çav li bejna pêşmerge yên kurdistanê bike.

Seba vê yekê di her parçê kurdistanê û di her hêz û saziyeke bi navê pêşmerge, her kes yan kesanek ku di pêxema rizgariya netewî de di xebat û tekoşînê de beşdar be, weke pêşmergeyên kurdistanê tê naskirin û rêz ji xebata vî tê girtin.

Partiya me di heyamê zidetir ji 6 dehikan ji xebat û tekoşîna xwe di hamber du deshilatên kewnarperest û diktatore paşatî û Komara Îslamî bê rawestan xebitîye û niha jî bo gehiştin bi armancên netewa xwe berdewame û di vî rêyê de gelek ewraz û nişîv birîne lê bi çok de nehatiye.

Bona vê ku em dema rêûresma xwe bi bûyerên derbasbûyî mijûl nekin, em xwe ji bas kirina xebat û tekoşîna hêza pêşmerge li hember rejîma paşatî, ku partiya me jî mil bi milê gelên din yên Îranê, rejîma paşatî ji nav birin, xwe diparêzin û bala we dikişînin ser doza rejîma totalîter û sedsala navînî ya Komara Îslamî û xebata gelê kurd û şanaziyên hêza pêşmerge yên kurdistanê, ku di qonaxên curbicur de çawan karîne di gel rêjîmekê ku birastî arîşe ye li ser rêya aştî û azadî û dîmokrasiyê di Îran û cîhanê de, lê li ser xebatê berdewam bin. Rewşa herî aloz û xwînîn û qonaxên xebata hêza pêşmergê Kurdistanê ku berberekaniya bi rejîêma Îranê re bûye, li wan çar teweran de tê şirove kirin.

**Qonaxa yekem:**
serkevtina gelên Îranê bi ser rejîma Paşayetî û hatine serkarê rejîma Komara Îslamî bi sedema haydarnebûn û neagahbûna xelkê ji naveroka vê sîstemê bû. Partiya damezirîner a hêza Pêşmergên Kurdistanê, wate Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê, ji riyên cur bi cur ve hewlek hemû aliyane da heya ku kêşeya netewî

***Pêşmerge bi tenê çekdarek asayî nine, belkî mamostayek zanîngehê, dîplomatek bihêz û rewşenbîrek serdemiyane yê/a netewa xwe ye ku kariye êş û elemên netewa xwe ya bindest bigehîne nav kom û civatên navnetewî***

û maf û azadiyên gelê Kurd ji riya siyasî çareser bike, lê her di destpêkê de, ev rejîma dijîgelî bi maf û azadiyên hemû neteweyên Îranê bi giştî û gelê Kurd bi taybetî biyanî bû, lewma hemû rojan di yek ji bajar û herêmên Kurdistanê şer û pevçûn li gel hêzên Pêşmerge rê dixist.

Rejîm bi darêtina senariyoyên cur bi cur tawana wan şeran dixiste ser milê Kurd û PDK Îranê heya ku di encam de bi sazkirina şerek li bajarê Pawe de, Xumeynî di 28'ê Gelawêj ê sala 1358'an de fermana "Cehad" û şerê seranserî li dijî gelê Kurd der kir û partiya me bi hiloşiyayî ragihand.

Hêza Pêşmerge jî bo parastin û berevanî ji mafê netewatî a gelê me, di heyama şerek sê mehî de, hemû rê û cihên Kurdistanê kir goristana dagîrkeran û maşîna şer û jengavî a wan ji kar xist û bi çok anî, ku şerê han bi şerê 3 mehî hate binavkirin, bi awayek ku Xumeynî ragihand bi rindî ji daxwazên gelê Kurd tênegihîştî ye, û fermana agirbestê ragihand û çareseriya kêşeya gelê Kurd ji riya niqaş û got û bêj kete ber bas û bi wî awayî got û bêjek di navbera dewlet û heyeta nûneratî a gelê Kurd dest pê kir.

**Qonaxa duyem**

Di vê rewşê de Komara Îslamî bi mifahstandin ji hesta aştîxwazane a gelê Kurd û got û bêj û agirbesê, carek din hêzên xwe amadeya şerek din kir û li jêr hemû qewl û sozên xwe da û carekê din bi êrîşbirin bi ser binke û baregehên partî û saziyên Kurdistanî û şerek din ê seranserî bi îmkanatek zêdetir û sazmandehiyek nû dest bi êrîşan kir.

Serbarê vê çendê jî di wê qonaxê de du xalên herî girîng bûne sedema vê yekê ku Komara Îslamî karî hêzên Pêşmerge mecbûr bi paşekêşiyê bike, yekem rûdana şerê Îran û Îraq û bizavtina hesta netewatî a gelên Îranê û anîna meydana xelkê Îranê bi maneya berevanî ji xak û nîşteman, û her di wê demê de jî çêkirina astengiyan bo partî û saziyên Kurdistanî di pêwendî li gel hikûmeta Îraqê de, ji aliyekê din ve nehevahengiya hêzên Kurdistanî û qewmîna şerê navxweyî ê Kurdistanê di navbera Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê û Komelê de, ku hêzên her du aliyan mijûlî şer kiribû û Komara Îslamî ji wê derfetê mifah stand û karî di destpêkê de riyên eslî û piştre bajar û gundên Kurdistanê dagîr bike û PDK Îranê û hêzên din ên Kurdistanê neçar man ku hewara xwe bibne bo çiyayan û bi wî awayî qonaxa şerê cibheyî bi dawî hat.

**Gelo em çavan pesna van mirovan bikin ku di nava befra zivistanê de tiliyên destê xwe ji dest didin, lê di hember de qet amade nabin ku ji navê pir ji şanaziya pêşmerge poşman bibin.**

**Qonaxa sêyem**

Piştî dagîrkirina Kurdistan ji aliyê hêzên Komara Îslamî ve û paşekêşiya hêzên Pêşmerge bo çiyayan, piraniya partî û saziyên Kurdistanî û Îranî dest ji xebata çekdariyê ber dan. Lê hêza Pêşmerge a partiya Demokrat di faza sêyem de xwe bo şerê partîzanî li dijî pîlanên nemirovane ên rejîmê teyar kir û hevdem li gel destpêkirina şerê partîzanî bi mifahwergirtin ji metodên xebat ên serdemiyane, geşe bi xebata dîplomasî û siyasî di derveyî welatê de da û pêka rewşa wê demê bi awayekî pir baş rêkxistinên xwe li derve û hindurê de organîze dike.

Hêza Pêşmerge a PDK Îranê jî bi îradeyek bilind pêşgîrî ji êrîşên hêzên Komara Îslamî dikir û bo carek din rê û bajar û gundên Kurdistanê bû mekoyê Pêşmergeyên qehreman û bû goristana êrîşkerên bo ser xaka Kurdistanê, û rojane bi sedan kes ji hêzên bêbawer ên Komara Îslamî dibûne qurbaniya siyasetên nemirovane ên karbidestên rejîmê û yan dibûne êxsîr û dîlên hêzên Pêşmerge ku tevî riftara mirovhez a Pêşmerge ber bi rû dibûn û canê wan dihate parastin.

Her wek ku di destpêkê de me amaje pê kir, Pêşmereg xebata xwe tenê di çarçoveya xebata çekdarî bertesk nekiriye û pêka rews û guhertinên roj ji awayên din ên xebatê jî mifah wergirtiye, û qonaxa çarem bi liberçavgirtina rewşa herêmê û guhertinan, bi taybet di herêma Kurdistanê, qonaxa siyasî-teşkîlatî û dîplomasî dest pê kir.

Tevî vê çendê hîn jî di warê leşkerî de her demek ku pêwîst be, pitansiyêla bihêztirîn hêza siyasî û leşkerî di Kurdistanê de heye, lê di serdema niha de parastina berjewendiyên netewî bo partiya me li serveyî berjewendiyên hizbî ye, di faza çarem de, pêwendiyên teşkîlatî ên xwe li gel xelkê Kurdistanê bi başî parastiye û bi siyaset û taktîkên serdemiyane hate qada xebatê û bi vî awayî hêza Pêşmerge bi stiratejiya rohn û diyarîkirî a xwe di qonaxên cur bi cur de û bi mifahstandin ji awa û şêweyên cur bi cur, xebata xwe li dijî sîstema totalîter a Komara Îslamî bi bêrawestan heya serkevtinê didomîne.

Encama xebata han, hevkarî û hevahengiya xelkê Kurdistanê li gel hêza Pêşmerge û ezmûna 32 sal derbasbûn bi ser hikûmeta dîktatorî a Komara Îslamî bo ser gelên Îranê jî pêk hatiye ji daketina dahata netewî, bêkarî, giranî û fesada civakî, sitema netewî û mesebî, siyasî, her çi zêdetir îdeolojîkirina hikûmet, newekheiya regezî û cinsî, girtin, îdam, tepeseriya tevgerên azadîxwazane û ..., tevî hemû bîr û boçûnên dîktatorane û dehan kiryarên dijî mirovane ên din ku tenê hêjayî vê sîstemê dijîgelî ne.

Di pêwendî li gel rewşa dereke de jî, piştkirin û binpêkirina hemû yasayên navdewletî, weke hewldan bo gihîştin bi çeka navikî û binpêkirina mafê mirov, destêwerdan di kar û barên welatan de û hewldan bo lihevxistina rewşa tenahiya welatên Îslamî bi mifahwergirtin ji hesta mesebî a xelkê wan welatan, pêkanîna tora terorîstî û piştevanî ji wan girûpan ku dibine sedema jinavçûna bi kom a xelkê bêtawan, destkevtên siyaseta derveyî a rejîmê ne û bûye sedem ku roj li dû rojê rejîm di asta cîhanî û herêmî de ketiye perawêzê û wêneya Îranê di nav bîr û raya giştî a cîhanê nehez kiriye û berevajî.

Encama berxwedan a qehremanane hêza Pêşmergên Kurdistanê li hember dîktatoriyek bi bîr û boçûna sedsala navîn a Komara Îslamî, hilkişanek erînî bûye û hêza Pêşmerge a PDK Îranê di nav komelên xelkê de xweştevî û pitir ji berê pêngavan ber bi serkevtinê davêje û di nav bîr û raya giştî a cîhanî weke hêzek xwedî pirensîp û demokrat û modern hatiye naskirin, û xelkê Kurdistanê jî bi asoyek rohn mêzeyî xebata hêza Pêşmerge dikin û herweha hêza Pêşmerge jî rewayiya xwe ji piştevaniya xelkê Kurdistanê û bîr û ramana azad û mirovtewerane werdigre, û heya serkevtin bi ser kevnperestî û tarîtiyê de, bi piştgiriya xelkê Kurdistanê xebata azadîxwazane a xwe didomîne û li encam de serkewtin ji hêza pêşmerge û serşorî ji bo rejîma Îranê ye.

Li dawiyê de tevî pîrozbahiya ji tev pêşmergeyên Kurdistanê, em ducarî dikin ku partiya tekoşer û xebatkar ya civatên xelkê Kurdistanê her niha jî gelek cesurane heya bidestveanîna armancên mirovî ên şehîdên Kurdistanê û li servey hemiyam rêberê me yê mezin Qazî, Qasimlo û Şerefkendî dest ji xebat û tekoşînê hilnagrin.

**Serkeve xebata netewî-demokratîk a xelkê Kurdistanê bona misogerkirina sîstemek demokratîk û federalî**

**Bijî Hêza Pêşmergê Kurdistanê, baskê bi hêz ê gel**
**Bihiloşe rejîma kevneperest a Komara Îslamiya Îranê**







# Împeratoriya Osmanî çima dest bi kuştina Ermeniyan kir

A: Rûken

Di dema xwe de Împeratoriya Osmaniyan bi du sedeman dest bi kuştara Ermeniyan kir. Ya yekemîn bi vê sedemê ku Ermenî wek dîwareh hesinîn ketibûn navbera Turkên Osmanî û Turkzimanên Qefqazê ku ketibûna aliyê din ê Behra Xezerê, ku bi tu awayî di warê toxmî ve Ermenî û Turk nêzî hevudin nebûn. Ya duyemîn ew bû ku Ermenî Mesîhî bûn û serbarê tewaya zextên li ser wan bona guherîna mesebê xwe ew amade nebûn ku mesebê xwe biguherin û bibne Misilman, lewra jinavbirina Ermeniyan ji aliyê pan turkîsmên Osmanî ve gellek hewce dihate zanîn.

Şerê yekemîn ê cîhanî derfetek weha da "Turkên Ciwan" ku komkujiyê pêk bînin. Eva bû ku di sala 1915'an de li gorî bernameyek ji pêş de darêtî nesilkujiya Ermeniyan ji aliyê panturkîsman ve hate cîbicîkirin. Ew cînayeta bû destpêk û mînakek ji bo Naziyan da ku li şerê duyemîn ê cîhanî de komkujiyek din li Ewropayê de li ser Cihuyan birêve bibin. Jinavbirina Ermeniyan ji aliyê dewleta wê demê a Turkiyê ve pilandarêtî bû.

Pilandarêj û biryarderên vê komkujiyê kesên wek Mihemed Telet Paşa wezîrê navxwe yê Turkiyê, Îsmaîl nûr (Enwer Paşa) wezîrê Şer, Ehmed Cemal Paşa wezîrê Deryadariyê ê Turkiyê bûn ku ser bi "Partiya Îtihad û Tereqî"yê bûn. Dewleta Turkiyê bona birêvebirina vê pilana xwe komîteyek sê kesî pêk anî ku endamên wê Behaedîn Şakir, Şokrî, û Dr. Nazim bûn. Ew terh di salên 1925 heya 1923'an li Ermenistana Rojawa ku li jêr deshilata Împeratoriya Osmanî de bû hate cîbicî kirin, ku li encama vê komkujiyê de li gorî hinek çavkaniyan nêzîk bi yek milyon kesî hatin kuştin, û nêzîk bi yek milyon kesî jî mal û milkê xwe bi cî hêlan û awareyê welatên curbicur ên cîhanê bûn. herweha tewaya wan mêrên ku temenê wan di navbera 15 heya 50 salî dibû bi hêceta birina wan bo eniyên şer ji aliyê erteşê ve hatin bang kirin. Dema ku Ermenî li ser banga erteşê çûne wir, tewaya wan çekên wan ji wan hatin sitandin û bo pişta eniyên şer bo karkirinê hatin birin.

Li 24'ê meha Nîsana sala 1915'ê nêzîk bi 300 kes ji rewşenbîr, nûser, siyasetvan û rêberên Ermeniyan bitaybetî Daniyêl Warojan, Siyamanto û Robin Siwak li Îstenbolê de hatin girtin û bi awayên herî hovane hatin kuştin.

Herweha her di vê rojê de 5000 Ermeniyên bê berevan li Îstanbolê de hatin kuştin ku ew kuştar destpêka komkujiya Ermeniyan bû, bi taybetî ew Ermeniyên ku bi navê leşkeriyê gazî kiribûn û piştî vê biribûne pişt eniyên şer, da ku karê zehmet bi wan bidin kirin.

Turkên Osmanî li 27'ê Gulana 1915'ê de yasaya veguhastina Ermeniyan bo Musil û Sûriyê amadekirin.

Berpirsyarên dewletî bi mezinên Ermeniyan ragehandibûn jiber ku ew herêma wan wê bibe cihê şerên mezin, lewra hewce ye ku ew herne wan cihên ku ewlehî têde hebe, bi vê hêcetê, bilez gellek ji wan şandin herêma Dêralzorê li nêzîk bajarê Helebê, ku li rê de hinek ji zarok û pîrejin û pîremêran canê xwe ji dest dan. Wan heya keç û jinên ciwan ji mêran cuda dikirin da ku destdirêjiyê bikne ser wan, û yên ku li hember vê hovîtiya wan leşkeran de ber xwe didan, dihatin kuştin. Her weha dema ku hêzên arteşa Rûsiyê ji bakura rojawayê Îranê paşve vekişiyan, wê demê jî hêzên Împeratoriya Osmanî ew Ermeniyên ku li Selmas û derdora wê de dijiyan bi awayê herî hovane qetil kirin.

Herçend dewleta niha ya Turkiyê kuştra Ermeniyan ret nake, lê hebûna siyasetek sîstematîk bo jinavbirina wan ret dike.

Turkiye li ser vê bawerê ye ku di wan salan de serbarê Ermeniyan gellek Turkên bê berevan jî hatine kuştin. Lê hinek binyat li Turkiyê de hene ku kuştara Ermeniyan wek cînosayd binav dikin, ku yek ji wan Binyata Mafê Mirovan ya Îstenbolê ye ku dibêje kuştara Ermeniyan jînosayd e. Herweha heya niha 20 welatan ew kuştar wek jînosaydê binav kirine.

Herweha di sala 2008'an de bû ku hinek ji mamostayên Turk ên zanîngehên Turkiyê kuştara Ermeniya wek nivşkujî binav kirin û seba vê komkujiyê daxwaza lêborînê ji Ermeniyan kirin, ku wan bi vê kiryarê karîbûn xeta sor li Turkiyê de derbaz bikin. Berî wê jî seba bi jînosayd binavkirina vê komkujiyê ji aliyê OrhanPamuk ( nivîskarê Ermenî yê Turkiyê û wergirê xelata Nobel ku piştre hate kuştin) ve, dadgehekê li Turkiyê de cezayê gitîgehê bi ser de sepandiû.

Niha yek ji şertên wergirtina Turkiyê wek endam li Yekîtiya Ewrupayê de ew e ku Turkiye kuştara Ermeniyan ji aliyê dewleta wê demê ya Turkiyê ve bi tundî mehkum bike, lê heya niha Turkiye amade nebûye ku vê komkujiyê wek jînosayd binav bike û mehkum bike.

Heyamekê berî niha jî Sarkuzî dîsan ji Turkiyê daxwaz kir da ku kuştara Ermeniyan wek komkujî qebûl bike. Wî gef jî xwarin ku heke Turkiye bersiva erênî nede wan ew dê yasayekê pêşniyar bike ku li gorî vê yasayê înkarkirina kuştara Ermeniyan wek komkujî tawan bê hesibandin. Lê Erdoxan jî bersivek tund da Sarkozî û ragehand ku ew nikarin gefa li me bikin, jiber ku dîroka Feransê jî pirre ji dagîrkarî û kuşt û kuştar. Wî herweha got ku wan dema xwe li Elcezayirê û gellek welatên din tawanên mezin û cînayetên hovane kirine.

Di rastî de ew komkujiya ku Împeratoriya Osmanî pêk aniye, kesê ku xwedî vijdan be, û ji bo azadî û dadperwerî û mafê mirovan kêmekê jî bixebite, nikare bêzariya xwe ji vê komkujiyê eşkere neke. Lewra hewce ye Erdoxan û deshilata wê jî ku şev û rojan bas ji aştî û azadiyê û vebûna demokratîk dikin, hewce ye ku bi şermezarkirina vê komkujiyê û daxwaza lêborînê ji Ermeniyan biselimînin ku bi heq ew jî aştîxwaz û dadperwer û mirovdost in.

Herweha Erdoxan û deshilatdariya AKP'ê bi lêborîna ji Ermeniyan, dikare vê şik û gumana ku di nav Kurdan de derheq "siyasîbûna lêborîna Erdoxan ji xelkê Dêrsîmê" pêk hat, heya qasekê kêmreng bike, û ew baweriya pêk bihêt ku AKP êdî dixwaze riya aştiyê bigre pêşiya xwe. Lê bêguman pêdagirbûna Erdoxan jî li ser qebûlnekirina komkujiya Ermeniyan dikare bê baweriya bi Erdoxan û deshilatdariya wê çend hember zêde bike.



# Pêşmerge şoreşvanek rizgarîxwaz û fîdakar





Dara Natiq

**D**i nav her netewe û civakek jêrdest de komek mirovên azadîxwaz û şoreşvan bi bîr û lênêrînek mirov tewerane dijî zulm û sitem û sereroyî û dîktatorî, çewsandin, asîmîlekirin û jêrdest bûnê û binpêkirina mafên mirovî disekinin û sereî hildidin, ku li nav her civak û neteweyekê de navekê li ser wan kesan dadinên.

Li nav gelê Kurd de jî ew azadîxwazên ku bona destveanîna maf û armancên neteweya xwe dijî dagîrkeran û êrîşberên li ser Kurdistanê sekinîne, navê bilind û pîroz ê pêşmerge wek şoreşvanekî azadîxwaz li ser hatiye danîn, pêşmerge ew mirovê şoreşvan û canfîda ye ku tenê û tenê li pêxema azadî û serbestî û bexteweriya xak û niştiman û neteweya xwe de çeka bergirê ji şeref û kerametê dijî dagîrkerên Kurdistanê kiriye milê xwe û bi bê tu cudahiyekê xebatê dike.

Şoreşvan lewra tê qada xebatê û alaya şoreşê hildigre ku ji naveroka deshilata zal û pêwendiyên civakî, siyasî, û aborî ên civakê bêzar e û wan bi kêrnehatî dizane û bi watayek din hest bi çewsandin, ne wekhevî, û binpêkirina mafê xelk, tex û qatên civakê yan neteweyekê dike û bi erkê xwe dizane ku dijî wan diyarokan helwesta xwe eşkere bike û bona jinav birina wan tekoşînê bike. Di rastî de serhildana şoreşvan pişt bi meirîfeyekê girê dide ku ji kurahiya têkiliyên civak ve serî hilda ye.

Lewra em dibînin ku pêşmerge ew şoreşvan e ku bi hest kirina bi wan rastiyan li pêxema rizgariya netewî, û azadî û parastina şeref û kerameta neteweya xwe de bi ew qasê ji xwe bihurîn û riha şoreşvanî ve jiyana pirr zehmet î îza ya pêşmergetiyê ji xwe re hildibjêre û li himbêza çiyayên sekeş ên Kurdistanê de û bi îradeyek polayîn û bi piştevaniya xelkê Kurdistanê dijî kela zordarîya kevneperestiyê tekoşînê dike.

Bi baweriya kesên wek “Erîk Firom” şoreşvan ew kese ye ku azadîxwazane û bi bawer ve tevlî şoreşê dibe, wate helwesta wê pişt bi meirîfeyekê girê dide ku bûye bawer û li hizr û bîra wê de reh û rîşe dakutaye û tuşî lerzokî û paşgezbûnê nabe. Bê guman ew taybetmendî rengdaneweyek berçav ji kesayetiya pêşmerge wek şoreşvanek azadîxwaz tê xuyakirin, û derxerê vê rastiyê ye ku hêza pêşeng û bê bin ya pêşmerge bi dirêjahiya xebata pirr ji şanazî û serweriya xwe gellek evraz û nişîv bixwe ve dîtine, gelek qonaxên şikest û serketin ceribandine, gellek şehîd û birîndar dane û serbarê vê yekê jî bi ew qasê cesûrî û lêhatîbûnê alaya şoreşê bilind ragirtiye, û qet tuşî bê hêvîtiyê nehatiye.

Pêşmerge guherînxwazek pragmatîst e ku li nav gumanan û xweziyan de najî, belku li gorî rîala civakê teoriyan dadirêje û hildibjêre û bi kryar jî wan teoriyan taqî dike û diceribîne. Li cem pêşmerge tu kesayetiyek û tu bîr û hizrek pîroz nine û bawerî bi tu teoriyek ne guher û reha nine, wate nabe kole ji tu boçûn û îdeolojiyekê re û naxwaze xelkê jî bike kole ji bo kesayetiya xwe. Pêşmerge şoreşvanek guherînxwaz û afirîner e.

Pêşmerge wek mirovekê ku li pey komek armancên mirovî de digere û bona bidestxistina wê amade ye ji her fîdakariyekê re, dibe sembol dibe wateya jiyanê, dibe hawara azadîxwaziya neteweyek çewsayî,ku hewla asimîlekirin û jinav birinê tê dayîn, dibe beha û nirxerk pîroz, Azdaî, mafê netewî, mirovdostî, berjewendiya giştî, yeksanî, jê bihurîn, demokrasî û bi dehan beha û nirxên din, ew in ku felsefeya hebûna pêşûmerge pêk tînin. Lewra jî pêşmerge sembola azadîxwazî û berexwedanê ne.

Ew wek baskê bihêz yê dakokîkirina ji buhayên mirovî zadeyê çand û ramanên kûr e li nav derûma mirovan de. Pêşmerge zadeyê bîra demokrasiyê û mafê netewî û bihevre sazanê û selimandina xwe wek mirov e. Pêşmerge û çanda ku afirandî ye xwediyê piristîjek berz ya mirovî û exlaqî û siyasî ne, çi di nav civakê û çi jî di asta cîhanê de jî. Pêşmerge berhema çanda bilind ya însanî ye.

Pêşmerge ew mirovê şoreşvan e ku wek şervanekî azadîxwaz û dîplomatek serdem ji tewaya metodên xebatê ya serdem mifahê werdigre, li pêxema rizgariya netewî û bidestxistina azadî û demokrasî û bexteweriya mirob û şerê bi dijî dîktatoran û hiloşandina kela zulm û zordariyê.






# Sûriye di nav bahoz û reşebayê tepeseriyê de

## Duktorê xizmetkarê şoreşê hate şehîdkirin

Roja 11'ê Çileya pêşîn rûpela "Şoreşa Sûriyê a li dijî Beşar Esed" ragehand ku Dr. Birahîm Osmanê ku meşvanan navê dukturê şoreşê lê kiribûn, li ser sînorê Tirkiyê û Sûriyê li dema ku dixwest ber bi Tirkiyê ve bireve, ji aliyê rêjîma Sûriyê ve hate şehîdkirin.

Li gora zanyariyan Brahîm yek ji wan doktoran bû ku ji bo alîkarîkirina bi birîndarên şoreşê û peydakirina dermanan gellek xizmet kir.

## Esed ragehand ku cîranên me hedefên nepenî dişopînin.

Serokê Rêjîma Sûriyê Beşar El Esed roja 11'ê Çiriya pêşîn hevpeyvîna televîzyona ABC'ya Amrîkayê got ku, welatên cîran hedefên wan ên nepenî li ser Sûriyê hene.

Esed herweha ragehand ku belge di destê me de hene, ez niha aşkere nakim, piştî ku ev belge baş werin tesbîtkirin ezê li ser van hedefan ji raya giştî re biaxivim.

Her wiha Esed li ser peymanên bazirganî ên di navbera Sûriyê û Tirkiyê de got ku, peyman ne li gorî berjewendiyên me bûn. Bazirganên Sûriyê ji me xwestin ku ev peyman werin betal kirin. Esed di bersivdana pirsan de got ku, hevîjîna wî Esma û malbata wî bi wî re ne, ligel dîtinên wî ne, û her roj înternetê dişopînin, û pirsan ji min dikin.

## Gefa bilavkirina kasetên sîksî

Roja 15'ê Çiriya pêşîn nûçegihaniya Times'ê ya Kûwêt ragehand, ku şêwirmenda Serokdewletê Sûriyê Bûseyna Şaban gef li serokdewletên welatê Kendavê xwar ku kasêtên wan ên sîksî wê belav bike.
Lewra çîroka van kasêtan bû meraq ji nêçîrvanên çapemeniyê re. Lê gelo, serokdewletên Ereb ên welatê Kendavê ji ber egera vê gefê, dê gavan paşde bavêjin ya ne, carê ew yek ne diyar e.

## protokola aştiyê ji aliyê rejîma Sûriyê ve hate îmzekirin

Roja 19'ê Çiriya pêşîn hate ragehandin ku Îmzekirin protokola aştiyê di navbera Sekreterê Giştî yê Komeleya Yekîtiya Ereban Nebîlk El Erebî û Alîkarê Wezîrê Karê Derve yê Sûriyê de pêk hat. Ji aliyekî din ve, li bajarê Şamê paytexeta Sûriyê Wezîrê Karê Derve yê Sûriyê Welîd Muelim di vê der barê de civîneke çapemeniyê li dar xist.Wî di civînê de got ku, di protokolê de hin guhartin hene, lewma me xwestin ku ew me îmze kir, nexwe me îmze nedikir.

Herweha Muelim li ser vê yekê tekez kir ku, desthilatdariya Sûriyê di vê plan û protokolê de hatiye misoger kirin. Ango, li gor gotina Muelim her ev rêjîm li Sûriyê de desthilatdar e û ji aliyê Komeleya Ereban ve jî hatiye qebûlkirin.

Hêjayî gotinê ye, di vê protokolê de hin xal ev in; vekişîna leşkeran ji nava bajaran û serbest berdana girtiyan, dawîhatina tundiyê, qebûlkirina çavdêran û diyaloga di navbera Hikûmeta Sûriyê û hêzên dijber de.

## Burhan Xelyon ragehand ku ji îmzakirina pirotekolê nerazî ye

Roja 20'ê Çiriya pêşîn Serokê Konseya Neteweyî ya Sûriyê Bûrhan Xelyûn, derbarê îmzekirina protokola aştiyê ji aliyê Sûriyê ve, daxuyaniyek da çapemeniyê. Weku ji daxuyaniyê diyar dibe, Xelyûn ji vê îmzekirinê bê bawer e, û ne bi dilê wî ye.

Xelyûn da diyarkirin ku rêjîma Sûriyê ev protokol îmze kiriye da ku dosyeya Sûriyê neçe ber destê Konseya Ewlekariyê, û derbarê rêjîmê de biryar neyên dayîn.

## Rejîma Sûriyê dîsan hate protesto kirin

**Roja 19'ê Çiriya Pêşîn Neteweyên Yekbûyî seba binpêkirina mafên mirovan li Sûriyê de rejîma Sûriyê bi tundî şermezar kir.**
Biryara şermezarkirina rêjîma Sûriyê bi '133' dengên erê, '11' dengên bê alî û '43' dengê dijber li Neteweyên Yekbûyî de hate davîn.



# Rojev

# Vê carê destê derekî di wan teqînan de nebû!



Şehab Xalidî

**P**iştî vê ku teqînek xwedîhêz li yek ji binkeyên Sipaha Pasdaran li herêma "Melard" a Kerecê de rû da, û bo heyamê çend rojan nûçeya vê teqîna bihêz bû manşeta ragehandinên giştî ên Îran û cîhanê, çend rojan piştî vê jî teqînek xwedîhêz li yek ji binkeyên navikî ên Îranê li bajarê Îsfehanê de rû da, û roja 23'ê Novemberê jî teqînek bi vî awayî li yek jî kogehên çek û teqemeniyan ên Hizbullaha Lubnanê de rû da.

Derbarê wan teqînan de bas ji vê yekê tê kirin ku renge ew teqîn armancên siyasî li piştê hebin, û ji aliyê rejîmê bixwe ve pilan jêre hatibe darêtin, ku mixabin belgeyên têra xwe nakin, ku heta kuştî û birîndarên giran jê çê dibin.

Gumanek din ew e ku renge ew teqîn karê Musadê bin. Li gor vê yekê ku hinek ji berpirsyarên paye bilind ên Îsraîlê kêfxweşiya xwe ji wan bûyeran eşkere kirine, û herweha li gorî vê ku di vê teqînê de fermandeyek paye bilind yê rejîmê bi navê Hesen Têhranî Muqedem hate kuştin, ku li gorî zanyariyan navbirî di şerê 33 rojî yê Hizbullaha Lubnan û herweha şerê 22 rojî ê Hemasê bi Îsraîlê re rolek pirr girîng hebû, û herweha li gorî vê ku navbirî bi gotina berpirsyarên rejîmê li ser çekekê kar dikir ku dikarîn bi dijî Amerîka û Îsraîlê vê çekê bi kar bînin, ew guman bihêz bûye ku Musadê dest di vê teqînê de hebûye, lê ew yek jî tenê li çarçoveya şik û gumanan de cih digre û nikare hizre reha û mutleq be.

Herweha ew teqîna ku li karxaneya çêkirina Polayê li Yezdê de rû da, û çendîn kes li encama vê teqînê de hatin kuştin û birîndar bûn, li gorî vê yekê ku berpirsê yek ji şîrketên polasaziyê ragehandiye ku renge li



di vî warî de li ber dest de ninin, lê li gorî vê siyaseta ku heya niha deshilatdarên herî payebilind ên rejîmê di warê jinavbirin û bê serûşûnkirina wan kesên ku heya xizmet jî bi nizamê kiribin, rêve birine, ew şik û guman pêk hatiye ku renge ew teqîn ne bûyerên asayî bin.

Heke jî em weha bihesibînin ku ew teqîn her wek karbidestên rejîmê bixwe jî îdia dikin li encama veguhastin û cîbicîkirina çek û teqemeniyan de rû dabe, gelo bi rastî ew rejîma ku her rojê bas ji deskewtek xwe di warê teknolojiya leşkerî û programa xwe ya navikî de dike, û şanaziyê bi vê hindê dike ku xwediyê gellek pisporên şareza ên leşkerî ye, çawa ye ku di dema amadebûna bi gotina berpirsyarên rejîmê bixwe, îstiratijîsteke wek Hesen Têhranî Muqedem amadekariyên hewce ên ewlehiyê nav hesinên helandî de hinek çek û teqemeniyên wek xompare û pukeyan hebûye ku ew teqîn pêk aniye, şik û gumana hebûna hinek pîlanan ji aliyê rejîmê ve xwedîhêz kiriye.

Lê bi her hal ew teqîn û ew gefên berdewam, dikare aloziyên zêdetir li dû xwe re bîne, ku bê guman encama wan her çi be, berî hemûyan karbidestên rejîmê li hember de berpirsyar in, jiber ku wan bi siyasetên ne mirovî û dûr ji exlaq, tovê çanda tîror û tirs û wehşetê li herêma Rojhilata Navîn û heta gellek cihên cîhanê de çandine, û tevdanîkarî û karê têkderane kirine bingeh ji bo parastina deshilata xwe ya sist û lerzok, ku mînaka wan şêwe deshilatan di dîrokê de ne kêm in, ku di dawiyê de her bi hêz, moral û berxwedana xelkê welatê xwe ji nav çûne.



# Bazerganî li ser xwînê

Dewleta Rûsiyê li helwestek çavnihêrnekirî de reşnivîsa biryarnameyekê xiste ber destê endamên şêvra asayîşa NY ku têde tund û tûjiya bikarhatî ji aliyê rejîma Sûriyê û dijberên wê ve hatiye mehkûm kirin.

Li reşnivîsa biryarnameya han de tund û tûjiya dewleta Sûriyê û nerazîbûnên medenî ên xelkê sivîl wekî hev hatine hesibandin û weke yek jî hatine mehkûmkirin.

Her çiqas ku ev helwesta Rûsiyê bi awayekê guhertin li siyaseta wî welatî de bû li hember rewşa Sûriyê, lê wusa diyare zêdetir li pêxema parastina desthilata Beşar Esed û ragirtina rojjimêra hiloşîna dewleta wî de derxistibin rojevê.

Wusa dixuye ku xurtbûna nerazîbûnan serbarê serkutkirina bi xwîn li 9 mehan de û bihêzbûna pêgeha opozîsyona Sûriyê û peywest bûna yek li dû hev ên leşkerên sipaha Sûriyê bi refa dijberên Beşar Esed û egera pêşhatina çarenivîsek şibî Qezafî



**Selah Muradî**

bo wî, Rûsiya nîgeranê ji destçûna yek ji dostên dîktator ên xwe kiribe. Mehkûm kirina rejîma Beşar Esed li reşnivîsa vê biryarnameyê de bi bêy diyarîkirina tu cezayekê jêre, hewleke bona pêşgirtin ji pêkhatina yekdengiya navnetewî a xurt li hember cînayetên Beşar Esed li dijî xelkê welatê wî.

Ew jî rast li demekê de ku helwesta Komkara Erebî, Turkiye û welatên Rojavayî li hember dewleta Sûriyê her ku diçe tundtir û micidtir dibe û sekreterê rêxistina NY daxwaz ji hêzên cîhanî kiriye ku bi navê mirovahiyê ve bona sekinandina kuştar û qetlîama dijber û neraziyên Sûriyê gavan hilbigrin.

Nerazîbûn û serhildana xelkê welatên Rojhilata Navîn û bakûrê Afrîqa, rûsiya jî vegirtiye û xelkê wî welatî li nerazîbûnek kêmwêne de piştî hiloşîna Yekîtiya Soviyetê, li dû hilbijartina parlimanî de derketin ser şeqaman û li dijî sextekariya li hilbijartinande û li dijî Viladimîr Potîn û partiya Rûsiyeya hevgirtî durûşm qîrandin. Serketina serhildêrên Sûriyê û hiloşîna rejîma Beşar Esed bêguman dê tesîr û karîgerî li ser murala xelkê nerazî ên Rûsiyê jî bike û dê bibe bûyerek ku ne tenê pêgeh û hilkevta dewleta Rûsiyê li rojhilata navîn de lawaz dike, belkî pêgeha Potîn û partiya wî jî ku qada siyasî a Rûsiyê qorix kirine, dê bilerizîne.

Rewşa han jî Rûsiya nîgeran kiriye û renge hiloşîna dewleta Sûriyê weke bûyerekê bibîne ku li pêşerojê de rastî wê jî bê.

Aliyekî din ê wê helwesta Rûsiyê dibe em weha binirxînin ku dewleta Rûsiyê ji zalbûna Beşar Esed bi ser dijberan de bêhêvî bibe û bi berevanî û piştewanîkirina heya dawiyê ji dîktatorek dorandî, berjewendiyên xwe li Sûriyeya dahatî de bo midehek demdirêj nexîne metirsiyê. Li rewşek wiha de ev zivirîna Rûsiyê ji siyaseta piştewanî kirin ji Beşar Esed, helwestek derenge ku zehmete ra û nêrîna xelkê birîndar û zirardîtî ên Sûriyê li hember piştgiriya wî welatî ji sitemkarî û cinayet û tawankariyên Beşar Esed biguherîne.

Dewleta Rûsiyê li pêvajoya bûyerên rojhilata Navîn de dûre maye û siyasetên wê him li navxwe û him jî li derveyî sînorên wê de li dijî pêvajoya pêşdeçûna azadî û demokrasiyê ye û li vê pêwendiyê de nikare destpêşxeriyek xuya û berçav bide xuyandin û gavên wê zêdetir bi awayek berevankaraane ne.

Lewre Biryarnameya pêşniyar kirî a Rûsiyê berî wê ku hewlek destpêşxerane be bo dawîanîn bi kuştin û qetlîama xelkê Sûriyê, zêdetir gaveke bona pêşgirtin ji derketine rojeva helwest û gavek navnetewî a çavnihêrkirî ya tundtir li dijî rejîma rû ji herifîna Beşar Esed.

Rûsiye li demekê de mijûlê bazerganiya siyasî bi welatên rojava de ye ku xelkê Sûriyê nirx û buhaya wê bi rijyana xwîna wan li ser şeqaman didin. Ev biryarnameya dewleta Rûsiyê awayek li dan û standin û bazerganiya bi xwîna xelkê bêberevane Sûriyê ye ku serê 9 mehan e li hember rejîma sitemkar û serberedayî a Sûriyê de berxwe didin. Siyasetek ku têde buha û normên mirovahiyê û bingehên exlaqî têde wunda ne.

## Pîşesaziya nefta Îranê, armanca dorpêçên nû ye

Heft endamên welatên pîşesazî, Kureya Başûr, Usturaliya, Erebistana Seûdî û Îmaratên Yekgirtî ên Erebî roja Sêşemî, 20'ê Desamberê li Rom, paytexta Îtaliya li dor Îran û xurtkirina tehrîm û dorpêçên ser Îranê kom bûn. Li vê civînê de birêveberiya Amerîka û hevalbendên sereke ên wê bi awayek berbilaw li dor çawaniya pêkanîna seqamgîrî û ewlehiyê li bazara cîhanî li egera ambargo xistina ser hinartina nefta Îranê û banka nawendî a Îranê sekinîn. Li wê civînê de, baskirin li ser çawaniya dewrlêdana gefên Komara Îslamî ji ber desthilata bi ser tengava Hormiz de ku nizîk bi %50 a hinartina neftê li wir de derbas dibe, yek ji mijarên sereke bû.



Rojnameya Wall street Jornal berê li raporekê de eşkere kiribû ku hevdem li gel birêve çûna civînek wusa, got û bêjên berfirehtir bi çend welatên hinardekar ên neftê weke Lîbî, Îraq, Xena û Angola li rojevê de bûne. Eva jî bona zêdekirina şiyana berhemanîna nefta wan welatane li pêxem pêşgirtin ji kêmasiya ku li egera kempîna rojava li dijî pîsesaziya nefta Îranê renge derbikewe holê.

## hukmê hovane a birîna dest û pêyên du girtiyan birêve çû

**Hukmê birîna dest û pêyên du kesan li ser biryara serdozgerê giştî û yê "Înqilab" a Şîrazê, di girtîgeha Adil Abadê de birêve çû.**

Serdozgeriya giştî ya Parêzgeha Farsê ragehang ku qasa birrîna pêyê ew kesê ku ji bankên bajarê Şîrazê dizî kiribû, ji aliyê dadgeha "Înqilab" a vî bajarî ve hate diyarîkirin, û li ser biryara serdozgerê Şîrazê, di girtîgeha Adil Abadê de birêve çû.

Herweha girtiyke din jî her bi tometa diziyê destê wî li girtîgeha Adil Abadê de hate birêve birin.



Agirî 9

Hejmar 173, 21'ê Çileya Pêşîn 2011

# Cazê xanima Şikak kê bû?



Bêhzad Simko

**D**i sala 1799'an da Simayîl axayê mezin (babê bapîrê Simko yê Şikak) bi destê dewlata Qacar li Zêynaliyê li naw deşta Nazî (15 kîlomêtriya Urmiyê) ser masê diyalogê hat teror kirin û Şehîd bû. **Cazêxanima** hevjîna wî, serokatiya rojavaya behra Ormiyê girte destê xwe.

Cihê desthilatdariya Cazê xanimê, kela naziyê (nazlû) bûye, ku îro bûye ciyek arkiyolojîk bo arkiyologan(kevnarnasan).

Li sala 1801'an de, Cazê xanim bi şarezayî û xebatên bi cî, bû desthilatdarek bi hêz û xwedî nav û şan, û dewleta Qacarî deshilata wê bi fermî nas kir, û Cazê xanim li temenê 46 saliyê de, heya 12 salan serokatiya eşîretên derdora behra Ormiyê û rojhilata behra Wanê kir. Lê eşîretên kurdan bi hevre nedibûne yekdeng, û hin car heger derfet heba karên dij bi hev dikirin û pitira wan dijberiyan, ya du mîrên sereke, wate mîrê kela xoşeb, û mîrê kela bêrdûkê bû. Cazêxanimê sê kur bi navên Mîrza axa, Elîxan û Heyabeg hebûn.

Mîrê xoşeb bi alîkariya Osmaniya dij bi Cazêxanimê şer dikir û dewleta Îranê jî bilî wê hindê ku alîkarê Cazêxanimê nebû, bi nihênî serok eşîret ji Cazêxanimê dûr dikirin. Cazêxanima Şikak ji aliyê diyalogên siyasî zor bi hêz bûye û ev alozî bi şarezayî ji naw birine û bi hêzek zêdetir ji pêş desthilatdar bûye.

Di nav hêzên Cazêxanimê de kurdên kiristiyan, û Êzidî jî hebûne . Serdema deshilatdariya Cazê xanima Şikak sîstema Mîr an mîrek hebûye, ku paşê bi destê Elîxanê kurê wê ji nav çûn. Elîxan bapîrê Simkoyê Şikake bûye. Cazêxanim bi xebat û çalakiyên xwe bû sebeb ku rada jiyana kurdan di warê aborî û siyasî de baştir bibe. Hebûna hêminî û alîkariya Cazêxanimê bû sedem ku xwedî pez û koçer ku pitira nifûsa kurdan pêk dianîn, baştir bijîn.

Hêzên mîrek û hinek kurdên xapandî bi destê dewleta Qacar, paşî çend sala ku Cazêxanim bi cangoriyek zaf karîbû berxwe bide û pêş bikeve, hêriş dibirin ser zozan û gundan, dest bi dizî û talan û kuştina xelkê bê guneh dikirin .

Cazêxanim hember wan şer kir û ev hêz ji naw birin û ta sala 1813'an serokê wan herêman bû ku di navbera du behran de cihgir bibûn. Paşê kurê wê, wate Elîxan bû serokê wan herêman ku xwîna babê wî rijyabû ser.

Xalên herî xwedîhêz ku bûne sebeb da ku Cazêxanim bibe desthilatdar, du xalên sereke bûn: Ya yekemîn ew bû ku hevjîna Şehîd Simayîlaxayê mezin bû. Ya duyemîn jî ew bû ku bo tolhildana xwîna Simayîl axa, bê şerê çekdarî û tenê bi siyseta diyalogê, Nasireddîn şahê qacar li ser masê diyalogê û li ber çavê derbariyan û serokên dewletî bi tundî mehkûm kir. Lewra Nasiredîn şahê Qacar neçar ma ku ji desthilatdariya herêma navbera du behran bi zikêşî dest bikêşe û bo parastina hurmeta xwe, Cazêxanim ji aliyê dewleta Qacar ve, kire seroka wê herêmê. Ji aliyê siyasî û gellek aliyên din ve, wê nîşanî gelê xwe da ku jin dikare tolan hilde û daxwaza rêberên xwe jî bi cî bîne û hember xirabtirîn şahên zeman raweste û daxwaza mafê xwe bike.

Mixabin ew jina jêhatî a Kurd li sala 1815'an piştî 61 sal jiyana xwe, koça dawiyê kir.

Li sala 1813'an de Elîxan li ser daxwaza dayîka xwe û xwedî kes û eşîretan, bû serokê êlên Şikak û hinek êlên din û mezintirîn xizmetên serdemî bo kurdan kir, sîstema Mîran ji nav bir û zulma wan qetand.

Di rastî de jinên wek Cazêxanima Şikak, HepsexanaNeqîb, Leyla Qasim, û ... bi hêz û jêhatîbûna xwe selimandine ku heke derfet bi wan bihê dayîn ew dikarin wek mêran di her warekî de bi taybetî di ware siyasî û dewketdariyê de jî gellek bi başî role xwe bi cî bînin. Lê mixabin ew civaka ku Kurd têde dijî vê derfetê nade jinan ku wek Cazêxanimê û ...hwd hêz û şiyana xwe di ware xizmetkirina bi neteweya xwe nîşanî gelê xwe bidin.

Hewce ye ku gelê Kurd jinên wek Cazêxanimê hertin bi bîr bîne û şanaziyê bi wan bike jiber ku ew beşek ji dîroka wan in.






# Girtiyên Kurd û rola ragihandinên Farsî ziman



Sadiq Vehdanî

Di çend mehên derbasbûyî de, givaş bi ser çalakên Kurd di rojhilata Kurdistanê de, bi awayek kêmmînak zêde bûye.

Li gor amar û raporên bilavbûyî ji aliyê nawendên mafê mirovî ve, di heyama 4 mehên derbasbûyî de, pitir ji 185 çalakên siyasî, medenî û çandî ên Kurd ji aliyê dezgeha ewlehî a rejîma Îranê ve hatine destbiserkirin ku bi giştî hukmê 215 sal heps bo 185 zîndaniyan hatiye derkirin.

Herweha di vê midehê de zêdetir ji 35 çalakên Kurd girev ji xwerinê girtine ku di hinek mînakan de gireva birçîbûna wan heya 40 rojan berdewam bûye.

Amara han piştrast dike ku asta givaş bi ser çalakên Kurd gellek zaftir ji çalakên herêmên din ên Îranê ye. Eva di halekê de ye ku malper û dezgehên ragihandin û nûçegihanî ên farsî ziman girîngiyek hewce bi vê mijarê nadin. Ew dezgehên ragihandinê, xwe bi nûçegihanên seranserî dizanin û îdia dikin ku bûyer û nûçeyên hemû herêmên Îranê ji wan re girîng in.

Roj nine ku çalakek siyasî yan çandî ê Kurd nehê destbiserkirin yan çalakek Kurd di zîndanên rejîmê de girev ji xwarinê negre, di rastî de givaş bi ser xelkê Kurd di Rojhilata Kurdistanê, givaşek kêmmînak di herêma Rojhilata Navîn de ye, lê newekhevî di siyasetên wan ragihandinên neKurd de xuya ye û helwesta bêdengî û girîngînedana hewce bi vê mijarê pêvajoya givaş bi ser xelkê Kurd zêdetir kiriye û di vê rewşê de rejîm jî dûr ji çavên dezgehên ragihandinê xwe ji tu kiriyarek hovane û nemirovane derheq riftara li gel çalakên Kurd naparêze. Eva di halekê de ye ku ragihandinek berfireh di warê binpêkirina mafê mirov di Kurdistanê de dikare heya astek ji wan givaşan kêm bike.

Ger girîngîdan bi mijarê mafê mirov erkê sereke a wan dezgehên ragihandinê be, divê xwe li hember rewşa Kurdistanê jî berpirsiyar bizanin.

Cuda ji malper û alavên ragihandin ên girêdayî bi partî û aliyek farsî, ku me tu çavnihêriyek ji wan nine girîngî bi binpêkirina eşkere a mafê mirov di Kurdistanê de bidin, mixabin ev zext û givaşên bêwêne li Kurdistanê ji çavê hin ji TV û malperên profêşnal û bêalî jî dûr maye.

# Rojnamevanî; hişyarkirina ifrît di xewa giran de!






Ceifer Muneşirniya

**S**alek din jî hat û bihorî, Komara Îslamî a Îranê li ser bidestxistina pileyên dijî azadiyê di asta cîhanê de berdewam e, û cardin jî rejîma Îranê karî pileya yekemîn a tepeseriya rojnamevanan bike para xwe, û rekorda bêrikeber di tepeseriyê de, li ser asta cîhanê ji xwe re tomar bike.

"Komîteya Piştevanî ji Nûçegihanan" ku binkeya wê li Waşîngtonê ye, her sal di nava welatên cîhanê de piştî lêkolînan berhevdanekê di warê azadiya ragihandinê de dike û rapora xwe di wê derheqê de belav dike.

Roja Pêncşemî 8'ê Çileya Paşîn a 2011'an, komîteya han di rapora xwe a îsal de, Îrana jêr desthilata rejîma Komara Îslamî de weke mezintirîn girtîgeha nûçegihanan da zanîn.

Eva bo sala duyem e ku "Komîteya Piştevanî ji Nûçegihanan" Îranê weke mezintirîn girtîgeha rojnamevanan dide naskirin. Li gor rapora saziya nedewletî a li Nîyoyorkê, Îran bi 42 rojnamevanên girtî, bo cara duyem li ser hev di pileya yekemîn a tepeseriya rojnamevanan de cih girtiye.

Gorî xwezaya Komara Îslamî û nasyariya ku li ser wê rejîmê di asta navxwe û derve de heye, bûyerên weha û belavbûna wan raporan li ser rewşa Îranê çavnihêrkirî ne.

Çimku Komara Îslamî di hemû waran de berevajiya hejmarên tomarkirina şanaziyan gavan dihavêje, di amarên nirxên "teweroma" abûrî û bêkarî û ... hwd de, sal bi sal hejmarên mezintir tomar dike û di tepeserî û bertengiya azadî û ji navbirina azadîxwazan de jî sal bi sal hildikşe û her weke tê dîtin ku du sal e di pileya yekemîn a kipkirina dengê rojnamevanan de ye.

Pêvajoya ku rojane û dem û salan di Îranê de birêve ye, li gel pîşe, hizr û ramana rojnamevaniyê di çeperek dij de ye. Rojnamevanî ku hewlên xwebexşane bo geşepêdana hewcehiyan, derbasbûn ji hizr û civakek kevnar û sunnetî ve bo civaka modern e, û dijatiya eşkere a rayedarên Komara Îslamî tevî cîhana modern, nîşan didin ku nabe em li benda wê hindê bin ku rejîm nermiyê di suyasetên xwe de pêk bîne.

Derebarê rojnamevaniya rastîn ku gihandina rastiyan bi civakê ye, û li hember de siyaseta bi dizî, û veşartina rastiyan, û çewaşekirina nûçeyan ji aliyê rejîma Îslamî a Îranê ve, mirov dikare mînaka "av û agir" jêre bîne.

Bêguman karbidestên rejîmê, desthilata xwe gihandine cihekê ku yan bi kuştina azadiyê xwe bi zindî dibînin, yan jî zindîbûna azadiyê bi mirina xwe dibînin. Lewma çi rê naçinê ku demarên pîrbûyî ên wan kevneparêzan xwe ji ber xwînek teze a rojnamevanan bigrin û bi hevre civakê zindî li ser lingan rabigrin.

Rojnamevanî xwîna teze û hêza civakê ye û rolek bi nirx di danîna bingeha ektîvkirina civakê û pêşvebirina çanda welat de dilîze, û matora bizavtina hizrên pêşkevtinxwaz e, û dinyaya zanîn û hişyariyê, yan jî xwenasiyê dike mafê herî xwezayî yê tak û girûpan. Lewra rayedarên rejîmê li hember pêla pêşkevtinê de nikarin xwe ragrin û neçar in ku dest bo tepeseriyê bibin.

Ev rejîme, êdî ji vê yekê jî derbas bûye ku bi sansoran rûyê xwe yê reş weşêre, belkî, her weke "Komîteya Piştevanî ji Nûçegihanan" ragihandiye, pêkanîna girtîgehek di çarçoveya sînorên Îranê de, ku bi kêrî hizrîna desthilatdarên rejîmê bê, ji aliyê rayedarên rejîmê ve weke baştirîn çareserî hatiye dîtin.

Pêka ku ragihandin weke çaremîn rukna demokrasiyê hatiye naskirin, di welatekê de ku sê desthilatên "yasadanîn, birêvebirin û dad" bi baştirîn şîweya îmkan karên xwe birêve bibin, bi bê azadiya ragihandinê nivîşkan û nîvco ye. Wêca çi bigîje ew sê desthialtên ku bi awayê kilîşeyî di Îranê de hatine damezrandin û di her warekê de welatê Îranê îzole kirine, û di girtin û îşkence û îdama rojnamevanan û qedexekrin û ji navbirina belavokan de karên hev pesend dikin. Gelo pîşeyê rojnamevaniyê di çarçoveya vê desthilatek weha de, wê çi pêgehek hebe.

Rojnamevanî ji xisarên civakê û paremayiya çandê xwedî derdikeve û ji bo hişyarkirina desthilatdaran bi armanca pêragihîştin û çareseriya wan xesaran tewaya hewlên xwe bi kar tîne. Lê di Îranê de rojnamevanî û hewlên dilsojane ên rojnamevanan ji bo hişyarkirina desthilatdaran, di rastî de hişyarkirina ifrîtê di xewa giran de ye ku hişyarbûn û pêvedan hevdem e.

# Pêşeroja deverê li bin ronahiya dawîn pêşhatan de

**Konferansek akademîk ji bo nirxandina bûyerên vê dawiyê ên Rojhilata Navîn û serhildanên xelkê li deverê, herweha berhevdana şop û derencamên wê li ser Kurdistana Îraqê birêve çû.**

Ew Konferans ji aliyê Wezareta Rewşenbîrî û Lawan a H.H. Kurdistanê hat lidarxistin ku li rojên 15'ê heya 17'ê Çileya Pêşîn li zankoya Duhokê de berdewam kir. Li konferansa han de 100 rewşenbîr û vekolerên siyasî ji 12 welatên deverê hatibûn vexwendin. Ji Kurdistana Îranê ve birêzan: Rehîm Surxî û Hisam Destpîş, mamostayên zanîngeha Selahedînê beşdar bûn. Herweha take partiya siyasî li Îran û Kurdistana Îranê de, PDK Îranê bû ku heyetek pêkhatî ji



Birêzan: Tahir Mehûdî û Nahîd Husênî endamên Komîteya Nawendî ên Partiyê û herweha Selîm Zencîrî û Gulale Kemanger, rojnamevan û kadroyên hizbê têde beşdar bûn.

Li konferansê de çendîn gotarên cuda li ser pêşeroja deverê, rola hêz û pêkhatên civakî, ayînî û netewî li piroseya guherînkariyan de hatin pêşkêşkirin. Bi taybetî li wan welatên ku kurd têde dijîn û heya qasekê rewş hat nirxandin ku êdî serdemê nasyonalîzama zal bi ser deverê weke pan turkîsm, pan Erebîsm û panfarsîzm li serdemê niha yê bicîhanîbûne û teknolojiyê de tûşî kirîzê hatiye û kakila xwe jidest daye û gelek kêmreng bûye. Bi giştî nîqaş û nirxandinek baş li dor wan mijaran hat kirin ku pêdeçûna bi ser wan de vê encamek baş bidû xwe re bîne.



# Pîroziya Şeva Yelda



Arif Velzî

**D**i zimanî Siryanî de ku li Rojhilata Navîn de wek zimanekî pirr kevnar tê hesibandin, peyva Yelda tê wateya zayîn û ji dayîkbûnê. Herweha li zimanê Romî de jî peyva "Noêl" di ciyê Yelda de hatiye bikar anîn.

Şeva Yelda ku wek şeva Çile jî tê naskirin, şeva herî dirêj ya salê yer ku dikeve navbera avabûna rojê li 30'ê Sermawezê ku roja dawiyê ya payîzê ye, û herweha hilatina şefeqê ku roja yekemîn ya Befranbarê ye, ku ew şev 15 demjimêr û 54 deqeyan dirêj e.

Li gorî zanyariyan bav û kalên me ku karê xwe ê cotkariyê li gorî guhertina demsalê encam didan, şeva Yelda wek şeva herî baş û di ciyê xwe de, bona bêhnvedanê piştî karekî zaf û bi zehmet ê cotkariyê, û bona xwarina keda destê xwe, û baskirina ji tecrubeya karê xwe zanîne, û di ew şeva Ehurayî de bi gotina helbest û sitranan, û xwerina mîweyên (fîkîyên) xweş şeva xwe derbas kirine.

Di vê şevê de li hinek herêmên Îranê de şimtiyên ku bi destmalên sor hatine xemilandin, ji bo yektir dişînin. Li hinek cihên din de jî masiyên mezin ji nûbûkan re dişînin. Herweha li bajarê Hemedanê bi xwarinên xweş, û bi girtina fal û xwendina helbestan ji aliyê pîrejinan ve, li bajarê Xurasanê bi xwendina pirtukên wek Şehname,li Erdebîlê bi xwarina **Birêşke**, gondore, Gîz û mêwijan, û li bajarên cur bi cur ên Kurdistanê de jî bi şandina diyariyan bo yektir û xwarina şimtiyê şeva Yelda pîroz dikin.

Gellek kes li ser vê bawerê ne ku xwarina Şimtiyê li yekem şeva Çile de, mirov ew qas bihêz dike, ku heya bidawîhatina çileyên mezin û kuşke jî nacemide û nexweş nakeve. Lewra em dikarin bêjin ku êdî xwarina şimtiyê li şeva Yelda de tevlî çanda xelkê herêmê bûye.

Tê gotin ku di dîroka Mîsra kevnare de jî cejna dubare jidayîkbûna rojê ku hemen şeva Çile ye, bo heyamê 12 rojan ku bi wateya 12 demsalên salê ye, ji aliyê xelkê vê herêmê ve hatiye pîroz kirin. Herweha li Yunana kevnare de yekemîn roja Zivistanê ku roja rêzgirtina ji Xwedayê rojê bûye, wek roja " Natalîs Anovîktûs" wate roja jidayîkbûnê binav kirine. Herweha Cihû jî di şeva Yelda de cejna xwe ya bi navê "Îlanût" yan cejna "Darê" birêve dibin.

Şeva Yelda serbarê vê ku ji aliyê Kurdan ve jî wek her neteweyek din di Îran û herêmên derdorê de, wek kulturekê tê qebûlkirin, lê ji bo Kurdan girîngî û giraniyek din jî heye.
Ew giringiya jî ew e ku di vê şevê de zarokek ji dayîk dibe ku piştî mezinbûnê wek rêberek şoreşger û azadîxwaz û aştîxwaz navê wî li her derê bilav dibe. Belê ew jî tu kes nine ji bilî rêberê navdar ê gelê Kurd Dr. Qasimlo ku tewaya jiyana xwe û heta rih û canê xwe jî di riya azadî û serbestiya gelê xwe de gorî kir.

Lewra gelê Kurd vê şevê ji her neteweyek din zêdetir hez dikin û bi dil wek şeva zalbûna tîrojkên rojê bi ser şava tarî û pirr ji sitem ya kevneperestiyê de dizanin. Bi vî awayî şeva Yelda vê ji bo heta heta ji aliyê xortên Dr. Qasimlo ve, wê wek şeva herî pîroz a salê bê binav kirin û ji her cejnekê baştir û germ û gortir wê bê pîrozkirin.

## *Bi evîna te dijîm*



*Besam Mistefa*

*Ger jidayikbûna mirov du car bin...*

*Ger zayîna wî du zayîn bin...*

*Ger jiyana wî du jiyan bin...*

*Tu,*

*Hatina te...û*
*Nêrgizên nava te...*
*Jidayikbûn*
*Zayîn*
*Û jiyana min in.*

*Bi evîna te dijîm..*

*Bi te re, ji te re û ji boyî te dijîm..*
*Bêyî te...*
*Gul ji bêhnê vala ne*
*Dar ji şînî û çivîkan vala ne*
*Derya ji avê vala ne*

*Bêyî te, ey Lorîna min*

*Ezman ji xewnan vala ye*

*Welat ji zarokan vala ne*
*Êvar ji aramî û bihn û qahwê vala ne...*
*Her roj dastana evîna me*
*Pel bi pel çîroka xwe vedibêje*

*Xêz bi xêz xewna xwe vedibêje*

*Dem bi dem efsaneya xwe vedihûne*

*Dibêje: Ev dil, ev xwîn, ev sing ji te re û piştî te ji axa sar re ne...*
*Lê!*
*Berî te nebûm,*

*Piştî te nînim*

*Bi te re û ji te re û ji boyî te heme, Lorîn!*
*Xwîn xwînê nas dike*
*Ezman tilûran nas dike*
*Xak baranê nas dike..*
*Ez tenê bihna te nas dikim!*
*Nêrgiza çiyayê Cûdî*
*Bûka herdemî*
*Xemla dilê min..*
*Nêrgiza dilê minî.*

**Hewlêr - 07.12.2011**

# Agirî

Duheftînameyek siyasî, civakî, çandî û hunerî ye
Ku Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê diweşîne

www.kurdistanmedia.com/kurdi
Navenda bingehîn ya xebata Agirî li Kurdistanê ye.
Navnîşana derveyî welat:
AFKB.P. 102- 75623 ParisCEDEX 13 –FRANCE
E - Mail: agiri2003@hotmail.com
agiri2003@gmail.com, rojnamaagiri@gmail.com

## Ehmedînijad li rîza herî pêş ya kesayetiyên balkêş de ye



**Malpera "Yahoo" di beşa nûçeya xwe de li ser kesên ku praniya nûçeyên sala 2011'an bi xwe ve mijûl kirine rapirsiyek birêve bir da ku bikare kesatiya herî bi bandor di salê de destnîşan bike.**

Yahoo'yê 10 kesatî dane naskirin ku hinek ji van kesayetiyan ji aliyê xwendevanên Yahoo'yê ve hatine hilbijartin û beşeke ji wan li ser bingeha rêjeya nûçeyên ku di salê de li ser wan hatine bilavkirin, hatine hilbijartin.

Ji Kesatiyên herî berçav di vê rîzbendê de em dikarin îşareyê bi "Êstîv cabz" avakerê "Epilê", "Aşîvaraya Ray" ekterê bi navûdeng ê sînemaya Hind, û Ehmedînejadê Serkomarê Îranê bikin. Xala herî balkêş ev e ku Mehmûd Ehmedînejad di rapirsiyê de bi bidestveanîna %50dengan di refa herî pêşê a rîzbendê de cih girtiye, û "Aşîvariya" bi %18 a dengan di pileya duyemîn û "Estîv Cabz" bi %10 a dengan di pileya sêyemîn de cih digre.

"Mohemed Bû Ezîz" ê Tunisî ku bi şevitandina cesteyê xwe şoreşa Tunisê ava kir, bi %5 a dengan di pileya çaremîn û "Ana Hizare" çalaka siyasî a Hinde û Xanim "Tevekul" a rojnamenûsa menî bi %4 a dengan di pileya pêncemîn de cih girt.

"Vayil Xenîm" ku bi qehremanê şoreşa Mîsrê hatiye naskirin bi %3 a dengan û "MustAefa Ebdolcelîl", şoreşvanê Lîbiyê û "Ang San Suçî" rêbera dijberên Miyanmarê û "Mihindra Sîng" Kapîtanê tîma Krîkt ya Hindê, her yek bi bidesvaanîna %2 a dengan di pileyên din de cih digrin.

## Kedkarek bêkar sola xwe girte Ehmedînijad



**Kedkarek bêkar li bajarê Sariyê de dema ku Ehmedînijad axavtina xwe dikir, sola xwe avête Ehmedînejad.**

Ew kedkarê bêkar ku heyamê salekê bû perê xwe wernegirtibû, bona nîşandana nerizayetiya xwe derheq nedana perê kedkaran û herweha rewşa bêkariyê xwe nêzî kursiyên pêşê kir û ji nişkêve sola xwe girte Ehmedînijad, lê li Ehmedînijad neket.

Hêjayî basê ye ku Ehmedînijad di salvegera koça dawiyê ya Kurdan de bona vekirina hinek pirojeyan sefera Sariyê kiribû.

## Japonê tirumbêleke balkêş çêkir

**Weha diyare Tokyo tu sînoran di warê teknolojiya çêkirina tirumbêlan de nas nake. Herî dawî di pêşangeha Show ya tirumbêlên Toyotayê de, Tokyo tirumbêleke weku telefona berîkê çêkir. Lê taybetmendiyên vê tirumbêla bi navê "Fun-Vii" balkêş in.**

Li gorî nûçeya Hurriyetê, taybetmendiyên vê tirumbêlê ev in:
1. Gellek perçeyên wê bi xeta înternetê ve tên girêdan.
2. Bi telefoneke berîkê ya hişmend tê kontrolkirin.
3. Pêşiya ajotvan ji ekraneke mezin pêk hatiye û dilê ajotvan çawa bixwaze dikere eyar bike.
4. Rengê ekranê li gor daxwaza ajotvan dikare were guhartin.



Avestakurd

## Tometbarên birêvebirina şoreşa nerm xelatek cîhanî wergirtin

**Areş û Kamyar Elayî, du birayên pizîşk ku li ser HIV'yê lêkolîn dikirin, ji aliyê Şêvra Cîhanî ya Tendirustiyê ve hatin xelatkirin.**

Ew du bira ku di Puşpera sala 1387'an de bi tometa hewildana bo hiloşandina nerm a hikumeta Îranê hatin mehkum û zindanîkirin, seba xizmeta di warê nasîn û dermana nexweşiya HIV htin xelatkirin.



Kamyar Elayî ku heyamek berî niha ji hepsê derket, li Waşintonê xelata xwe wergirt û herwusa got ku di wan du sal û nîvan girtina xwe de, heyamê du mehan di bendên takekesî de bûye, lê birayê wî Areş hêj di hepsê de ye.

"Cêf Êstirçiyû" birêveberê Şêvra Cîhanî ya Tendirustiyê di dema pêşkêşkirina xelata 10 hezar dolarî de ew du bira bi sembola şarezayiya di warê tendirustiyê de dan nasîn û got: "Seba berevanî ji nexweşên Îdzê canê xwe xistin nava xeterê de".

## Îran li rîza 171'an a rîzbenda azadiya aborî de cih girt




Index of Economic Freedom World Rankings (Click on the country name for more details.)

| WORLD RANK | COUNTRY | FREEDOM SCORE | CHANGE FROM PREVIOUS | WORLD RANK | COUNTRY | FREEDOM SCORE | CHANGE FROM PREVIOUS |
|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 1 | Hong Kong | 89.7 | 0.0 | 93 | Morocco | 59.6 | +0.4 |
| 2 | Singapore | 87.2 | +1.1 | 94 | Mongolia | 59.5 | -0.5 |
| 3 | Australia | 82.5 | -0.1 | 95 | Ghana | 59.4 | -0.8 |
| 4 | New Zealand | 82.3 | +0.2 | 96 | Egypt | 59.1 | +0.1 |
| 5 | Switzerland | 81.9 | +0.8 | 97 | Swaziland | 59.1 | +1.7 |
| 6 | Canada | 80.8 | +0.4 | 98 | Nicaragua | 58.8 | +0.5 |
| 7 | Ireland | 78.7 | -2.6 | 99 | Honduras | 58.6 | +0.3 |
| 8 | Denmark | 78.6 | +0.7 | 100 | Tunisia | 58.5 | -0.4 |
| 9 | United States | 77.8 | -0.2 | 101 | Serbia | 58.0 | +1.1 |
| 10 | Bahrain | 77.7 | +1.4 | 102 | Cambodia | 57.9 | +1.3 |

**Li gorî pêwera azadiya aborî a sala 2011'an ku ji aliyê binkeya lêkolînên Hirîtîç ve hatiye bilavkirin, Îran li refa 171'an de cih digre ku nîşaneya rewşa pirr xirap ya rejîmê di warê aborî de ye.**

Li gorî vê pîwera ku ji aliyê binkeya lêkolînan a Hirîtîç ve hatiye bilavkirin, Îran di nav welatên cîhanê de 42.1 poan wergirtine û li rîza 171'an de cih girtiye.

Ew welatên ku li rîza 1 heya 10 de cih girtine welatên: Çîn, Sengapûr, Ustralya, Niyozîlend,Swîs, Kanada, Îrlend, Danmark, Amerîka, û Behrîn bûn.

